Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

# Agirî

Hejmar: 163
22’ê Tîrmeha 2011
Buha: 150 Tûmen

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdi

**PDK Îranê di daxuyaniyekê de topbarana sînorên Herêma** Kurdistanê ji aliyê rejîma Îranê ve mehkûm kir

R: 2

**PDKÎ di daxuyaniyekê de sipasiya xelkê Kurdistanê kir**

R: 2

**Bikujê Dr. Qasimlo bû berpirsyarê** nivîsîngeha Elî Larîcanî

R: 3

**Balyozê rejîma Îranê li Bexdayê barek cihê şik û** gumanê ya teqînê li tirombêla xwe de bi cih kiribû

R:8

**Komara Îslamî 5.8** Milyard Dolar hevkariya Sûriyê dike

R: 8

## Serbarê gef û çavsoriyan;

# Îradeya xelkê Kurdistanê bi ser rejîmê de biserket



Serbarê wê ku rejîma Komara Îslamî a Îranê li ser û bendê 22'ê Pûşperê de rê û cihên tund ên ewlehî girtibûn ber xwe, û gef û çavsorî ji xelkê dikir, girtin û lêpirsîn zêdetir kiribû, çavdêriyên tund danîbûn û bi giştî kurdistan mîlîtarîze kiriye, lê dîsan jî xelkê xweragir ên kurdistanê him li hember zext û givaş û çavsoriyên rejîmê biçok de nehatin û bi pêşwaziya gaziya PDK Îranê ve hatin û bi mangirtina seranserî a xwe her ji Urmiye, makû û Şinoyê ve bigre heya digihîje Kirmanşanê peyamek zelal dan rejîmê û raya giştî: Yekem terorîzma Komara Îslamî mehkûm kirin. Duyem; rêz ji şehîdê xwe girtin û emegnasiya xwe bi nisbet rêbaza wî dubare kirin.

Xelkê qehreman ên kurdistanê bi wê gav û bizava xwe dîsan meşrûiyeta rejîmê birine bin pirsiyarê û jêre dan selimandin ku tu hêz û qawetek nikare wan biçokde bîne û wan û pêşengê xebata wan ji hev veqetîne. Lewma îradeya hesinî a wan dîsan bi ser ket û dujminê serşor heyrîmayî ji viyan û îradeya xwe kir.

### Li paşkoya taybet a vê hejmarê de:

**Têmûr Mistefayî:**
**Peyama gireva 22’ê Pûşperê ev bû ku** gel dikare bi yekdengî û îradeya xwe bi ser her hêzek tepeserkar de ser bikewe



R: 3

**Nesrîn Qasimlo:**
**Her kes û aliyek di nav PDKÎ de hewlê** bo lawazkirina wê partiyê bide, îxanetkar e



R: 4



**Dr. Qasimlo hem karîzmatîk** hem jî xwedî mentiq

Bêhzad Xoşhalî

Hewcehiya berçavgirtina lênerîna sîstemî di warê behs û gengeşeyên nû de. “Maksul Can Sî” di pirtûka bi navê 21 yasayên... R:4



**Di bîranîna qutabiyekî** Dr. Qasimlo de

Nasir Salihî Esl

12 salan berî niha, li şeva 24’ê Pûşpera 1387’an a Rojî û di 10'mîn salvegera şehîdbûna mamosta û rêberê gelê Kurd,... R: 6



**Mîlîtarîze kirina Kurdistanê û** neewle kirina sînoran

Senar Hatemî

Li van midehên derbasbûyî de Komara Îslamî a Îranê serbarê domandina siyasetên hovane ên xwe...



**Îslamîkirina Hunerê bi çi** armancekê?

Sadiq Vehdanî

39 sal bi ser koça dawî a hunermend Hesen Zîrek de derbas dibin, lê hêj deng û... R: 11

Hejmar 163, 22'ê Tîrmeha 2011

# PDK Îranê li daxuyaniyekê de derheq mangirtina giştî a Kurdistanê di roja 22'ê Pûşperê de, sipasiya xelkê Kurdistanê kir

Deqa daxuyaniyê bi vî awayî ye:

Civatên xebatkare xelkê Kurdistanê!
Kom û civat û kesayetiyên azadîxwaz!
Endamên xwedî moral û cesûr ên PDKÎ
Pûşpera îsal jî wek salên borî di hinek waran de baştir ji salên borî şahîdê tekoşîna cesûrane û helwêsta netewî û îradeya we bû. Îsal jî serbarê hewlên bê qas û berdewam ên rejîmê di warê



gefxwarin ji bazariyan, parazîtxistina li ser Tîshk TV, bangkirina hejmarek ji xortên welatperwer û gefxwarina li wan û anîna hêzekî zaf ya teyar ji bo çavtirsandina xelkê derheq birêveçûna kar û çalakiyên propagendeyî û herweha pêşîgirtina ji daxistina dukan û bazaran li 22'ê Pûşperê, 22'mîn salvegera terorkirina rêberê navdare Kurd Dr. Qasimlo, dukan û bazarên beşek ji bajarên Kurdistanê bi şêweyekî berçav hatin daxistin, û çalakiyên propagendeyî ji salêb borî baştir û berfirehtir birêve çûn.

Xalên din yên ku ji aliyê Komîsyona Teşkîlatê ve hatibûne diyarîkirin, wek nehatina xelkê gundan bo nav bajaran, lixwekirina kincên Kurdî û bikaranîna rengê şîn yê esmanî û vemirandina çirayên malan, ji demjimêr 10'ê şevê pêde bo heyamê 3'ê deqeyan û herweha civînên pêwendîdar bi 22'ê Pûşperê gellek bi başî birêve çûn.

Hemwelatiyên rêzdar!
We di refekî hevgirtî de bi beşdariya gişt tex û qatan bi bê berçavgirtina bîrûrayên cuda û bi bê guhdana bi gefxwarinên rejîmê li panoramayekî bê mînak de selimand ku tu hêzekê şiyana pêşîgirtina ji îradeya gel çinine, û gel bi yekgirtin û yekdengiyê dikarin bo gihîştina bi mafên xwe ên rewa li hemberî deshilata tepeserkar ya rejîma Îranê de bisekine, û di vê qadê de serkevtinê jî bi dest bixe.

Taybetmendiya din ya Pûşpera îsal bangewaza girtiyekî cesûr û netirs ê Kurd ê parêzerê mafê mirovan Mihemed Sidîqê Kebûdwend berpirsê rêkxirawa Mafê Mirovan li Kurdistanê de bû derheq binavkirina vê rojê wek roja xebata dijî terorîzma dewletî û piştgîrîkirina gellek ji rêkxiraw û kesayetiyan ji vê gaziya PDKÎ ku hêjayî destxweşîkirin û aferîngotinê ye, her di hemen dem de jî selmandina vê rastiyê ye ku rejîm heta bi girtin û eşkenceya xebatkarên neteweya me nekariye bi ser îradeya xebatkarane ya girtiyên siyasî de zal be, û di rastî de xebatkarên riya azadiya gelê me, ne tenê li hemberî zoriyên di girtîgehê de neketine qedeman, belkû wan girtiyan girtîgeh kirine çeperekî din ya xebat di pêxema azadî û mafê rewa yê gelê Kurd ku eva ciyê şanaziyê ye, û tên û germihiyek taybet dide xebatê.

Dawî hewl û pîlan ji bo pêşîgirtin ji birêveçûna girevên giştî şandina pêlekî xwedîhêz ya parazîtê bû bo ser firkansa Tîşk TV li ser Hatbêrdê, û herweha arîşepêkanîna ji bo hêlên telefona Tîşkê û nivîsîngeha nûneratiya PDKÎ û îrêşkirina bo ser malperên PDKÎ, ku bi xweşî ve bi helwêstek netewî û cesûrane ew pîlan jî hate têkşikandin.
Xelkê azadîxwaz û çavnetirs ê Kurdistanê!

Ew hereketa cesûrane ya we di dîroka pirr ji destanrêsî û fîdakariya gelê me de wê bi xetên zêrîn were nivîsandin û wê bibe rênîşander ji xebatkarên riya azadî û demokrasiyê di raserî Îranê de.

Di vê derheqê de Komîsyona Teşkîlatê ya PDKÎ li hemberî morala polayîn û îradeya xwedîhêz û hevgirtî ya xebatkaraneye we de serê rêz û hurmetê ditevîne û pîrozbahiya vê serkevtina mezin ji we dike û aferîn û sed aferînan dişîne bo bazariyên xebatkar û netirs, û gişt tex û qatên civakê ku her yek ji wan di ciyê xwe de, di vê serkevtinê de beşdar bûn.

**PDK Îran**
**Komîsyona Teşkîlat**
**23.04.1390**
**14.07.2011**

## Sergotar

# Piştî du dehsalan nîqaş, ''AMIA'' hêj zîndî ye

**Arîn**

Komara Îslamî a Îranê li siyaseta derve a xwe de hemû yasa û rêsa û pîvanên navnetewî binpê û sînorên mirovahiyê jî bezandiye. Ya ku li cîhana mirovahiyê û yasayên demokratîk de nahê pejirandin û kiriye bi stratejiya neguher a xwe. Ew jî siyaseta terorîstî û wehşeta Komara Îslamî ye ku niha êdî li hemû cîhanê de dewsa wê xuya ye û karnamyek reş li vê derheqê de ji xwe re nexşandiye.Bi wateyek din Komara Îslamî şanazî û taca mezintirîn piştewanê terorê li deverê de ji xwe re misoger kiriye.

Li çarçoveya vê siyasetê de bi sedan û hezaran kiryarên terorîstî ne tenê li asta Îranê, belkî li asta dever û cîhanê de encam dane û bi hezaran xortên bêguneh li nav xwînê de gewizandine, zarokên sêwî hêtîm hêlane, gelek seqet û nivîşkan kirine. Bi taybetî li serdemê - ''serdarê avakirinê, Refsencanî- de zortirîn gorî ji bargeha azadiyê û civaka mirovahiyê standin. Terora rêberên opozîsyona kurd û Îranî ji nimûneyên herî berçav ên wê ne. Bi giştî li her ciheke azadî, demokrasî û ewlehiyê dîtibin, bê ferq û cudahiyên mesebî, netewî û zimanî xwe li çepera dijî wan de cih dane. Her çend ku heya niha li gelek kom, civat û dadgehên navnetewî de rejîm hatiye mehkûm û tawanbar kirin, lê li rêbaza xwe de her berdewam bûye.

Dosyayek ku piştî du dehsalan heya niha jî her vekirî maye û hukmê navnetewî yê înterpolê bo çend karbidestên Komara Îslamî li dû xwe re anî, dosyaya teqandina nawenda Cihûyan li sala 1994'an li Arjantînê de ye ku bi fermana Îranê û Hizbulaha Lubnanê hat encam dayîn û piştî lêkolînên zaf serbarê mehkûmiyetê, hukmê girtinê bo 8 kes ji karbidestên wê demê yên rejîma Îranê re hat dayîn ku serokkomarê wê demê( Refsencanî), Wezîrê Îtilaat, Wezîrê berevaniyê ...û li nava wan de bûn.

Niha piştî 17 salan bi ser wê bûyera terorîstî de dîsan dosyaya terorîzma komara Îslamî vegeşiyaye û dozgerê wê dosyayê, dîsan daxwaza hevkarîkirina dewleta Îranê li dor radestkirina wan daxwazkiriyan bi armanca lêkolînên zêdetir bûye. Rejîmê jî li gavek pêkenok û teblîxî û dubare de, soza hevkariyan daye, helbet bi mercê betalkirina hukm û lêkolînên berê.

Vê dosyayê girîngiyek taybetî li warê siyasî de bo her du aliyan heye û serbarê wê ku dewsa rêberên Komara Îslamî li terorê de bo carek din xuya dibe, herweha dê bibe sedema givaşên navnetewî yên siyasî li ser rejîmê di hemû biyavan de. Ji hêla din ve jî pêşiya nifûza zêdetir a Îranê û kurtkirina destê wê digre û dê bibe rêxweşker bo vekirina gelek dosyayên din ku li encam de dilxweşiya azadîxwazan, serketina eniya aştîxwazane û mirovhez û şermezarî û rûreşiya Komara Îslamî û terorîstan lê dikewe.

# PDK Îranê di daxuyaniyekê de topbarana sînorên herêma Kurdistanê ji aliyê hikûmeta Îranê ve mehkûm kir

**Deqa daxuyaniyê Deftera Siyasî a PDKÎ bi vî awayî ye**

Kom û civatên mirovhez!
Gelî azadîxwazan!
Xortên netewa Kurd
Di van rojên dawiyê de rejîma Komara Îslamî a Îranê, car din serbarê topbarankirina deverên sînorî ên Kurdistana Îraqê, êrîşek berfireh a leşkirî jî bi bezandina sînor bo nava axa Kurdistanê de destpê kiriye ku di encam de xincî binpêkirina serweriya herêma Kurdistanê, hejmarek ji hevwelatiyên akincî ên deverên sînorî ên vê beşa Kurdistanê jî bûne gorî û hejmarek pêtir jî bi neçarî cihê kar û jiyana xwe bi cih hiştine û xesarek berbiçav gihîştiye mal û samana akinciyên vê deverê.
Eva jî di halekê de ye ku Komara Îslamî a Îranê çi li navxwe û çi li derve de tevî komek kirîzan berbirû ye û dixwaze bi wan kiryaran bîr û raya giştî li Îran û derve de berxwar bike.
Di vê pêwendiyê de PDK Îranê vê kiryara Komara Îslamî a Îranê li jêr her nav û bi her hêcetekê ve be, mehkûm dike û daxwaz ji navendên navnetewî û alîgirên mafên mirov dike li hember vê kiryara neyasayî a Komara Îslamî de helwestek jêhatî bigrin û ji her riyek mumkin ve pêşî li van pîlan û binpêkirinên vê rejîmê bigrin ku berevajiya her yasa û rêsayek navnetewî ye û li hember vê kiryara nemirovane de bêdeng nebin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**19.07.2011'an**
**28.04.1390'a Rojî**

# Daxuyaniya komîsyona teblîxatî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê




Em xelkê azadîxwaz yên Îranê û bi taybetî xelkê xebatkar ên Kurdistanê û herweha raya giştî a cîhanê agehdar dikin ku piştî gaziya mangirtina giştî li Kurdistana Îranê ji aliyê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve bi boneya 22'ê Pûşpera îsal Ku 22 mîn salvegera terora Dr. Ebdullrehman Qasimlo bi mebesta nîşandana bêzarî ji terorîzma dewletî a Komara Îslamî û di hemen demê de bilind nirxandina bîranîna Dr.

Qasimlo, rejîma Komara Îslamî bi agehdarî ji amadegiya xelkê Kurdistanê, bi armanca pêşgirtin ji vê bizava nerazîtiyê li pêş girtiye ku pêk tên ji:

Şandina hêzek pêtir a nîzamî, întizamî û îtilaatî û cihgîrkirina wan di bajarên Kurdistanê de, azardana xelkê, komkirina mahwareyên xelkê li bajar û gundan de, gazîkirina esnaf û bazariyan bo îdareya îtilaat û nawendên tepeserkar ên din û gefxwarin ji wan bi armanca pêşgirtin ji daxistina bazaran di roja Çarşemiyê de, gazîkirina çalakvanên medenî û gefxwarin ji wan bo xweparastin ji hewildan di pêxema birêveçûna mangirtina giştî, şandina parazîtê bo ser fêrêkansa TISHK TV û pêşgirî ji belavbûna bernameyên vê televîzyonê, pêkanîna pirsgirêkan di telefonên TISHK TV û belavbûna bernameyên înternêtî ên TISHK TV û daxistina malpera TISHK TV û herweha pêkanîna pirsgirêkan bo telefon û faksa Bîroya Nûnerayetî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li Parîsê.

Em raya giştî ji vê kiryara dijî azadiyê a Komara Îslamî ku nîşana lawazî û çipênemana vê rejîmê li hember bizava nerazîtiya medenî ye, agehdar dikin û mehkûm dikin û daxwaz ji xelkê Kurdistanê dikin serbarê hemû hewl û bizavên rejîmê, dîsan di pêwendî li gel birêvebirina mangirtina xwe de micid û pêdagir bin.

**komîsyona teblîxatî a Partiya Demokrat a Kurdistrana Îranê**
**12'ê Tîrmeha 2011'an a Zayînî**
**21'ê Pûşpera 1390'a Rojî**

# Dr. Mehmûd Usman, parlemantarê Îraqa federal du peyamên cuda bi munasibeta 22'ê Pûşperê û terorkirina Dr. Qasimlo arasteyê xelkê Kurdistanê kir



**Peyama Dr. Mehmûd Usman, Nûnerê Parlemana Îraqê bi hinceta 22 mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo**
**Di Bîranîna Şehîdkirina rêberê nemir Dr. Qasimlo û hevalên wî de**

22 salan berî niha rêberê nemir Dr. Qasimlo tevî Ebdulah Qadirî Azer û Dr. Fazil Resûl di roja 13-07-1989-an li ser maseya gotûbêjê ligel rejîma Îranê, bi awayek nemêrane hatin şehîdkirin û hikûmeta Nemsayê bi şandina tawanbaran bi rêz û hurmet ve û bi rêya balafirê bo Tehranê di vê tawanê de beşdar bû, ku eva jî xirabtirîn şêwaza terorîzma dewletî tê hesêb. Mixabin heta niha jî lêkolîn li ser ev tawana mezin nehatiye kirin û siyaseta dijberîkirina Kurd hêj berdewam e û dawazên wan ji rêya bikaranîna zordarî û darvekirina çalakvanan û metodên din ên bêdengkirinên ne yasayî tên bersivdan û terorîzma dewletî di vê warê de berdewam e. Di vê bîranîna dilêş de em dibînin ku çawa bombarankirina her du aliyên sînorên Kurdistanê ji aliyê hikûmeta Tehranê ve dom dike.Eva jî bûye sedema kuştin û birîndarbûn û avarebûna welatiyên Kurd, serbarê ewê ku jimareyek zêde ji bêstan û çêrîngehên Kurdistanê hatine şewitandin û heywanên wan jî nav çûne. Eva jî domandin û berfirehkirina terorîzma dewletî ye ji aliyê hikûmeta Tehranê.

Di demekê de ku em serê rêz û hurmetan li hember rêberê nemir Dr. Qasimlo û hevalên wî diçemînin, daxwaz dikin ku tawanbarên wê bûyerê û hevalên wan bên sezadan û herwiha daxwaz ji welatiyên Kurd li Rojhilatê Kurdistanê û hêzên netewî dikin refên xwe yekgirtî bikin û berdewam bin li ser xebnatê heta gihîştin bi hikûmetek netewî û demokratîk li Îranê ku têde mafên netwî û niştimanî ên gelê Kurd bên dabînkirin.

### Mehmûd Osman: Destxweşî Ji Gireva Nerazîbûna Ciwanên Xwîn Germ û Hemû Welatiyên Kurdistana Rojhilat dikin

ciwanên xwîn germ û hemû welatiyên Kurdistana Rojhilat dikin ku di vê rojê de bi awayek berfireh di girevê de beşdar bûn bo şermezarkirina şehîdkirina rêberê nemir Dr. Qasimlo û hevalên wî ku 22 salan berî niha ji aliyê rejîma Tehranê ve li bajarê Viyenê hate terorkirin.

Bi hêviya serkevtinê ji bo welatiyên Kurd li Kurdistana Rojhilat û hemû netewa Kurd bo gihîştin bi armancên xwe dikin û daxwaz dikin ku herdem yek deng û yekrêz bin di xebatê de heya serkevtinê.

Hezaran silav ji bo canê paqij ê Dr. Qasimloyê rêber û hevalên wî û hemû şehîdên Kurdistanê.

# Bikujê Dr. Qasimlo bû berpirsyarê nivîsîngeha Elî Larîcanî

**22 salan piştî şehîdkirina Dr. Qasimlo, bikujê wî ne tenê nehatiye girtin, belkî pile û payeyên wî jordetir diçe.**

Bikujê Dr. Qasimlo bi navê Mihemed Ceifer Sehrarudî ku berpirsê tîma terorkirina Dr. Qasimlo bû, li ser û bendê salvegera terora wî de, hat xelatkirin û asta berpirsayetiya wî jorde çû.

Eve jî zatê rejîmên dîktatorî ye ku bo handan û teşwîqkirina xelkê bo tund û tûjî û terorê, wiha wan xelat dike.

# Rewşa azadiya ragehandinê di Turkiyê de cihê nîgeraniyê ye

**Hîlarî Kilînton wezîra karûbarê derve ya Amerîkayê ragehand ku ew nîgeranê azadiya ragehandinê di Turkiyê de ye.**

Piştî vê ku ragehandinên Turkiyê eşkere kirin, ku di Turkiyê de 60 rojnamevan di girtîgehê de ne, Hîlarî Kilîntonê ragehand ku tepeseriya rojnamevan bi qazancê Turkiyê nine ji berku Turkiyê berbijarê endametiya di YE'ê de ye.

Kilîntonê herweha seba geşekirina di warê abûrî û siyasî ya Turkiyê keyfxweşiya xwe eşkere kir û got kevneşopiyên demokratîk ên Turkiyê dikare bibe model bo welatên herêmê. Berpirsyarên YE'ê gotûbêjên derbarê tevlîbûna Turkiyê bi YE'ê re di sala 2005'an de qebûl kirin,lê ew pêvajo ji vê demê pêde gellekî hêdî bûye, û Feranse û Ewrûpa derbarê endametiya Turkiyê hinek têdîtinên xwe hebûne.

Turkiye dewleta Qîbrisê bi fermî nas nake û û derheq Qibrisê hertim aliyê Qibrisiyên bi eslê xwe Turk girtiye. Gotûbêjên aştiyê ku di sala 2008'an de di navbera aliyê bakûr ê Turkakincî û aliyê başûr yê Yûnanîakincî ya Qibrisê de dest pêkiriye, negihaye tu cihekî.

# Dr. Qasimlo hem karîzmatîk hem jî xwedî mentiq



Bêhzad Xoşhalî
W: Bahoz

**Hewcehiya berçavgirtina lênerîna sîstemî di warê behs û gengeşeyên nû de**

"Maksul Can Sî" di pirtûka bi navê 21 yasayên cihê pesendê ên rêberîkirinê de, bi mifahwergirtina ji taybetmendiyên rêberekî karîzmatîk ( ku di rastî de li gorî perwerdehiyên birêveberiyê û lênêrîna metolojîk ya Maks Wibêr bû) û her weh rêberekî bawermend bi eqil û mentiq taybetmendiyên wan rêberan dijmêre ku li gorî hizra şirovekarên peyva rêberî û rêberiya stratijîk ji rêber û pêşrêberên xwedîhêz in, û di dirêjiyê de bi sermayekirina zanistê, rêkar û pêvajoyên weha diafirînin ku bi berhemanîn û xistne hereketêye zanistê, saziyên li jêr rêberiya xwe de ber bi aliyê bidestveanîn û cîbicîkirina armancan rêberî dikin.

**Yasaya Derpûş:** Şiyana rêberiyê, radeya xwedî bandorbûna mirovan diyarî dike.

**Yasaya nifûzê:** Pêwera rastîn ya rêberiyê nifuz e, ne zor ne kêm

**Yasaya pêvajoyê:** Rêberî rojane geşe dike, ne di rojekê de

**Yasaya rasterê dîtinê(Cehetyabî):** Her kes dikare gemiyê rênimayî bike, lê ji bo destnîşankirina riya hereketa gemiyê hewcehî bi rêber heye.

**Yasaya A. F.Hatun:** Dema ku rêber rast biaxive, xelk guhdarî dikin.

**Yasaya bingeha bihêz û serpiyan:** Bawermendî bingeha rêberiyê ye

**Yasaya hurmetdanînê**: Xelk bi awayekî xwezayî ji wan rêberan peyrewî dikin ku ji wan bixwe bihêztir bin.

**Yasaya "şem û şihud"ê:** Rêber her tiştî li ser bingeha rêberiyê dinirxînin.

**Yasaya mixnatîsî:** Her tişt girêdayî bi vê yekê ye ku hûn çi kesan ber bi aliyê xwe ve dikêşin.

**Yasaya pêwendiyan:** Rêber berî vê ku daxwazê ji kesekî bikin, dilê wî bi dest tînin.

**Yasaya bazineya navxweyî:** Hêz û şiyana rêberiyê kesên herî nêzîk bi rêberiyê diyarî dikin.

**Yasaya îxtiyardanê:** Tenê rêberên xwedîşiyan îxtiyarê didne kesên din.

**Yasaya cardinafirandinê:** Rêber e ku dikare rêbersaziyê bike.

**Yasaya razîbûn û qebûlkirinê:** Xelk di destpêkê de rêber dixwazin, piştre ramanên wî qebûl dikin.

**Yasaya serkevtinê:** Rêber ji bo serkevtina grûpa xwe riyekî peyda dikin.

**Yasaya "teherok"ê:** Teherok û livlivîn, baştirîn hevalê rêberekî ye

**Yasaya serwetirbûnan:**Rêber bona vê ku ber bi pêşve here, divêt rihê fîdakariyê hebe.

**Yasaya dem diyarîkirinê:** Dema rêberîkirinê, bi qasî çi kirin, û gihîştina bi kîderê, giring e.

**Yasaya geşekirina wek teqînê:** Bona geşekirina bêhtir peyrewan rêberî bikin, û bona çend hember geşekirinê rêberan rêberî bikin.

**Yasaya mîratê(mîras):** Buhagiraniya xwedî dewam û hertimî ya rêberan, di destê mêratgirên rêber de ye.

" Maksul Cansî" piştî hijmartina wan tayabetmendiyên 20 daneyî, taybetmendiya 21'an bi vî awayî tîne zimên:

21 encamwergirtin: Her tişt bi alîkariya rêbertiyê jêhel diçe û geşe dike.

Dr. Qasimlo wek rêberekî karîzamatîk bi wateya metodolojîk ya wê, komek taybetmendiyên berçav bi xwe re û di nav xwe de hene ku mirov dikare bi sanahî wan taybetmendiyan di nav nîşaneyên reftarî-kesênî yên rêberên karîzmatîk de bibîne. Nîşaneyên reftarî ên reberekî karîzmatîk pêwendî bi hevre hebûne û girûpekê di gel yektir pêk tînin. Rêber wê demê karîzmatîk in ku dîtingehên wan bi rewşa heyî re bi tewahî dij be, lê di hemen demê de divêt ji peyrewan re azadiya helwêstgirtinê hebe ku gelo wî rêberî qebûl dikin yan ne.



Rêberên karîzmatîk îmkan heye ku rîskên şexsî jêhel bibin û nirxên zêde bidin û canfîdayiyê bikin da ku bigîjin armancên xwe.

Rêberên karîzmatîk kêrhatîbûn û şarezayiya xwe di derbasbûna ji nîzama heyî ji riya bikarbirina îmkanatên awarte îsbat dikin.

Rêberên karîzmatîk ew reftarên ku ecêb, û ne asayî ne bi kar dibin, û rîskên şexsî encam didin, ku renge derbê li berjewendiyên wan ên şexsî bide.

Rêberên karîzmatîk nirxandinek dirust ji çavkaniyên derdora xwe hene û fehm dikin ku astengiyan di diyarîkirin yan têgihîştina wan ji lênerînan, bandora xwe heye.

Dema ku astengî û zexta çavkaniyên derdorê bo rêberên karîzmatîk pozetîv e, ew rêkarên îbtikarî (destpêşxistinê) ên xwe bi kar tînin.

Rêberê karîzmatîk rewşa xwe ya heyî wek rewşek nîgatîv û dijwar û armancên xwe ên pêşerojê wek bedîlek balkêş û ciyê serkevtinê qebûl û pesn dikin.

Rêberên karîzmatîk armancên xwe û hizr û ramanên xwe bi awayekî rohn û zelal bas dikin da ku bikarin ji riya reftarek cesurane û eşkerekirina bawermendiya bi xwe, pisporî, ne bawbûn (ne carrbûn) û nîgeraniya derbarê hewcehiyên peyrewan rêberî bikin.

Dr. Qasimlo di hemen demê de rêberekî xwedî eqil û mentiq bi hemen wan karaktir û pispûriyan e ku "wibêr" û şarezayên piştî wî bas dikin.

Rêberên bawermend bi eqil û mentiqê, ji dîtingeha "Wêbir" xwediyê wan taybetmendiyan in:

Hêz û şiyanan çareserkirina bi awayê serûber ya pirsgirêkan hene.

Hêz û şiyana bidestxistina ceribandinan ji serkevtinên kesên din, û bikaranîna rêkarên nû hene.

Ceribandinên pêşîn û ên niha bi awayekî berbiçav bi kar dibin.

Bi saziyên herî serkevtî re dikevin nava rikeberiyê û wan ji xwe re dikin mînak. Hêz û şiyana veguhastina bilez û bi bandor ya zanistê di tevaya astên saziyê de hene.

Dîtingehek din ku îro di nasînnasiyê (şinaxtşinasî) û kiryar tewerî (karkerdgerayiyê) de gellek giringî pê hatiye dan, aliyê sîstemî ye û hewcehiya hewildanan ji bo zalbûna bi ser "astengiyên bixwe çêkirî" de ye .

Dîtingeha sîstemî bona zalbûna bi ser wan sînorên alîgirane, encamwergirtina li ser bingha pêwera (OR-OR) yan "Ev" yan jî "Ew", û (NOR-NOR) wate "ne Ev ne jî Ew" dide rexek din, û bi darîştina şêweya îstintacê ya AND-ANS dest bi darîştina pêwendiya "hem Ev hem jî Ew" dike da ku me ber bi aliyê vê bawerê rênimayî bike ku di cîhana tevlîhev ya îro de mijara "saziyên tevlîhev" rûyê bi kiryar bi xwe ve girtiye û hewcehiya avabûna saziyên bi vî awayî bi sedema hebûna mirovên tevlîhev bi pêwendiyên cur bi cur di çarçoveya teoriyên cur bi cur de pêk hatiye.

Qasimlo bi cihgirtina di çarçoveya dîtingehek sîstematîk hem rêberek karîzma ye ku di bendên pêşîn de me îşare pê kir û hem jî rêberek xwedî mentiq ku biryara nasîn, rêkxistin, veguhastin û mifahwergirtina drust ji zanist û zanyariyan di pêkanîna rêberiya xwe de berçav girtiye.

Qasimlo serbarê karakterên karîzmatîk û xwedî mentiq rêberek xwedî buhagiraniyên mirovî ye jî, ku hemen ew taybetmendî navbirî ji gellek rêberên cîhanê yên di halê geşekirin yan geşenekirî cuda dike.

Giringiyê dide vedîtina heqîqetê û pêdagiriyê li ser rê çareseriyên mentiqî û çaresaz derheq pirsgirêkan dike.

Giringiyê dide dilxwazbûn û bi kiryarbûnê, û pêdagiriyê li ser îstandardan dike.

Giringiyê dide şikl, ciwanî û hevahengbûnê, û pêdagiriyê li ser biyavên hunerî dike.

Giringiyê dide dilovaniya bi xelkê û mirovatiyê re, û pêdagirîyê li ser rêzgirtina ji xelkê dike.

Giringiyê dide hêz, post û nifûzê û pêdagiriyê li ser rikeberî û serkevtinê dike.

Giringiyê dide yekîtî, û pêwendiya xelkê bi cîhanê re.

Hebûn tewaya wan taybetmendiyan e ku me neçar dike ku em di warê lêkolîna li ser karakterên kesênî ên rêberekî wek Dr. Qasimlo di daweriyên xwe de, mifahê ji dîtingehên sîstemî wergirin.

# Serhildana bi xwîn



Ebdulla Hicab

Di gel xwînrêjî, zext û guwaşên rêjîma sûriyê, her roja ku derbas dibe serhildana gel li hemû deverên welat zêdetir germ dibe, û pêlên serhildanê bajarên Rojavaya Kurdistan jî girtiye. Daxwaziyên "Gel azadî dixwaze" û "here" êdî li her deverê bi dengek bilind û vekirî bilind dibin û tank û supayê ku rê û kolanên bajaran dagirtinê nikare pêla şoreşê bisekinîne.

Niha piştî çar heyvên germe serhildanê, ne Beşar El Esed sozên nermbûna siyasî, guhertin û rakirina rewşa taybete leşkerî bi cî anî, ne jî gel û serhildêran bawerî bi wî û sozên valaye ku wî dabûn anî û pêre ketin dialogê. Ji ber cewhera înkarker û dijdemokratîke rêjîmê, nayê payîn ku di rojên pêşiya me de jî guhertinek di siyaseta dewletê û şêweya dan û stana wê bi gel re rû bide.

Li hember wê yekê, xelkê ku heya niha bi sedan qurbanî dane jî ne mumkîne ku hema bi hêsayî paşve gavan bavên û dest ji daxwaziyên xwe berdin.

Xuya ye ku her du eniyên li himberanî hev; ji aliyekê ve rêjîma yek partî ya Bais, ji aliyê din ve piraniya xelkê welat ku niha di nava tevgera dijber de ne, biryara xwe ya dawî dane ku bi hev re neyên rayê. Ev rewş dikare ji senaryoyek pir li xwîn û alozî re rê veke ku ne dûre di demek ne pir dûr de ne bi tenê Suriyê, lê belê hemû heremê û welatên cîran jî bixe nava rewşek awarte.

Rêjîma Sûriyê niha li her demê pitir bê hêviye û pêşeroja xwe tarî dibîne, lê hê ji xwe emîne ku tu cîgirê ciyê baweriyê nînin. Pitir ji 60 sal dîktatorî, bêdeng kirina dengên nerazî û rênedan ji bo avabûna opozisyonek xwedî pilana siyasî, kêm zêde îmkana avabûna opozisyonek hevgirtî, demokrat û xwedî berpirsyarî nehêştiye. Weke çawan li civîna wê dawiyê ya opozisyonê li Stenbolê re xuya bû, her alî û kesayetiyên dijberê rêjîmê xweserî xwe, cuda ji hev û hin caran jî li dij hev kar dikin û tu ji wan fêrî karê bi hev re û dialoga siyasî nebûne. Di navbera aliyên opozisyona Ereb û aliyên Kurd de jî hê dialogek erênî û bi armanc destpê nekeriye.

Niha ku hem gelê Ereb û hem gelê Kurd li ser piyane û derfeta guherînê bi cidî li rojevê ye, her aliyek bi tena serê xwe ketiye nava tevgerê heya ji aliyekê ve serhildana gel rêberî bike û ji aliyê din ve baweriya nevneteweyî bi dest bixe. Di gel hewlên ku tên dayîn, hê alternatîveke siyasiya yekdeng û bi pilan li hember rêjîmê ava nebûye. Lê aliyên Ereb di nava liv û tevgerek cidî de ne ku dengê xwe bikin yek. Bi wê pêvajoyê re hêzên siyasiye Kurd jî li her alî ve kar dikin heya ku bibin beşek ji wê gera li pey cîgirê deselata dîktator.

Lê ew pêvajo pir hêdî dimeşe. Di gel hemû hewldanan, niha piştî pênc heyv serhildan hê pilatformek hevbeş nehatiye ava kirin û partî, kesayetî û aliyên siyasiye dijberî rêjîmê hê li ser pilanek hevdeng bo dema piştî dîktatoriyê li hev nekirine. Di wê rewşê de tevgera Kurd li Rojavayê Kurdistanê jî ku ew potansiyel heye bibe xwedî rolek giringe guherînê, hê bi ser kêmasiyên hundire xwe de ser neketiye.

Hê jî dudengî û çend rengî li navbera hêzên xwedî bandor xuya dike. Her çend tevgera Kurd dizane ku ji bo bikare rola xwe bi erênî bilîze, dibe bi yekdengiya xwe di serî de baweriya gelê Kurd bidest bixe û bi wê re jî weke pêşeng û parêzerê demokrasî, aştî, mafê mirovan û wekheviya gelan baweriya derdoran bistîne.



Pêvajoya lihevhatin û bihevre karkirina hêzên siyasiye Kurd pir dereng maye, lê hevceiya rojê ye û pêwîste demek ji ya din zûtir astengiyên li ser riya xwe rake. Ew yek her çi qas bi zehmet be jî, lê mumkîne û pêwîstiye. Hevbendî û saziyên sîvane ku niha pêk hatine, her çend pir erênî û di ciyê xwe de bin, lê têra bersiva rewşê nakin û rêkxistin û partiyên siyasiye Kurd pêwîstiya wan bi platformek hevdeng û hevbeşe neteweyî heye ku hemû aliyên Kurd, bê cudatî hembêz bike û xwe ji kêmasiya niha rizgar bike.

Weke li helwêst û şêweya nêzîkbûna beşek ji opozisyona Sûriyê re derdikeve, zêhniyeta înkarkere dewletê karîgerî li ser opozisyonê jî kiriye. Bi awayekê ku hê li ser bingeha nasnameya etnîkiye Erebî li çareseriyek li derveyî rêjîma Bais digerin, bêy ku astengiyên li ser riya demokratîzebûna Sûriye ku yek ji wan heman nasnameya etnîkiye bibînin û çareser bikin.

Siyaseta deselatdarên Sûriye li hember gelê kurd li Rojavaya her ji roja damezirandina dewletê ve di sala 1946 heya îro tu gav dostane nebûye. Lê sala 1965 bi biryara dewletê ji bo avakirina kemera Erebî li sînûrê navbera Bakûr û Rojavaya Kurdistanê, nêzîkbûna dijminkare dewletê li hember gelê Kurd hê pitir xuya kir û şûnpê danî.

Kemera Erebî (al-Hizam al-Arabi) ku li herêma Cizîrê avabû 300 km dirêj û herî kêm 10-15 km pane û hemû herêmên Kurdî ji sinûrê Êraqê re heya Serê Kaniyê (Ra's al-'Ayn) li rojava digre hundirî xwe.

Pilana bi Ereb kirina wan herêmên sînurî ji sala 1973 u pê ve bi awayek cidî kete jiyanê. Dewletê li ciyê Kurdên ku li wê kemera stratêjîk dihatin dûr xistin malbatên Erebê Bedewî anîn Kurdistanê û ji bo wan xanûber, kar, îmkanên jiyanê û mal û milk dabîn kir.

Di hember de Kurdên ku li herêmê dihatin dûrxistin, ne xesar standin û ne jî îmkana jiyanê li deverên din ji bo wan hate misoger kirin. Bi wê pêgavê re, hem mirovnîgariya (demografî) herêma Kurdistanê hate guherîn, hem nav û nîşaneyên Kurdî li ser herêmê hatin rakirin û her deverê EL-ek Erebî bi xwe ve girt.

Di encama avakirina kemera Erebî de herî kêm 140,000 Kurd ji heremên nêzîk başûrê deşta Al-Raad bi darê zorê hatin koçber kirin. Cotkarên Kurd, mal û milkên xwe ji dest dan û ji kar û pîşeya xwe ya kevnar hatin veqetandin. Di nava wan gundiyên cotkar de, kesên ku berxwe dan hatin serkut kirin, yên din neçar man xwe bi destve bidin.

Piraniya wan di gel mal û milk û heiya xwe, nasname û mafê hevwelatîbûnê jî ji dest dan. Bê nasname û belgeyên qeydê, wan Kurdan tu mafê sûdgirtin ji xizmetguzariyên civakî, tendurustî, perwerde an civakî nebûn. Bi wî rengî Kurd di encama siyaseta dewletê de bûne hevwelatiyên bêmaf, bê cî û war û qada nû ya bindeste civaka Sûriyê.

Beriya wê demê, di salên 1962 de, nêzîk 20% Kurdên li bin deselata Sûriyê bi yasayek taybet ji mafê hevwelatîbûnê hatibûn bêpar kirin. Hêceta dewletê ew bû ku ew koma Kurdan ji welatên cîran u bi taybet ji Turkiyê re derbasî Sûriyê bûne û li wî welatî ne xwediyê tu mafî ne. Li gor hin belgeyên ku rêkxistinên mafê mirovan belav kirine herî kêm 300 000 kes û li gor agadarî û zaniyariyên ku rêkxistinên Kurd belav dikin herî kêm nîv miliyon Kurd li Sûriyê weke kesên bê welat an biyanî tên temaşe kirin. Ev hijmar nêzîk 20% hejmara hemû Kurdên welat e.

Bi berçav girtina wê rewşê û bi dîtina siyaseta hêzên opozisyonê, tenê riya li ber tevgera Kurd ewe ku rojekê ji ya din zûtir platforma hevbeşe neteweyî ava bikin. Tevgera siyasiye Kurd li Rojava li sala 1957 bi damezirandina Partiya Demokrata Kurdistana Sûriyê bi serokatiya Daham Miro bi awayek fermî destbi têkoşînê kiriye.

Di gel wê dîroka dur û dirêj ya têkoşînê, niha tu partî an rêkxistin bi tena serê xwe nikare weke nûnerê gelê Kurd li Rojava tev bigere. Nayê innkar kirin ku bandora rêkxistinên beşên dine Kurdistanê, di serî de PKK û pişt re jî PDK u YNK li ser partî û rêkxistinên Kurdên Rojava pir zêde ye. Niha li ser milê wan her sê rêkxistinane jî ku bi awayek cidî ji dost û hevbîrên xwe bixwazin heya li bin sîwana saziyek siyasî ya hevbeş bêne dora hev.

Rêjîma deseltadar li Sûriyê çi pêşeroj nîne, lê serketin bi ser wê rêjîmê û zêhniyeta înkarker de bi xwe misoger nabe. Tevgera Kurd pêwîstî bi hin gavên lezgîne siyasî heye heya hindî dereng nemaye di pêvajoya guherînê de bi awayek cidî cî bigre û rola xwe bilîze.

# Di bîranîna qutabiyekî Dr. Qasimlo de

Nasir Salihî esl

12 salan berî niha, li şeva 24'ê Pûşpera 1387'an a Rojî û di 10'mîn salvegera şehîdbûna mamosta û rêberê gelê Kurd, Dr. Qasimlo de, qapûsa mirinê li nexweşxaneyên bajarê Bexdayê de, pêsîra yek ji jêhatîtirîn qutabiyên rêbaza Dr. Qasimlo girt û piştî berxwedanek canê wî jê stand. Mixabin Selam Ezîzî, yek ji rêvîngên rêbaza mekteba Dr. Qasimlo, bi sedema nexweşiyek ji nişkivî ve malawayî ji heval û hevçeperên xwe kir.

Şehîd Selam Ezîzî, sala 1325'an a Rojî, li gundê "Ezîzkend" a devera Bokanê ji dayîk bû. Navhatî heya pola pêncem a destpêkî li gundê "Donguz" a Bokanê ders xwend, piştre li ser daxwaza malbata xwe dirêjî bi xwendina dersên olî di Mehabadê de da. Hevdem li gel xwendina dersên olî de, dîploma xwe jî li wî bajarî wergirt û di deverên derdorên bajarê Urmiyê de bû bi mamostayê dibistanê.

Li sala 1350'an li rişteya Yasa a zanîngeha Tehranê hat wergirtin. Piştî tewawkirina zanîngehê di îdareya Dadwerî a bajarê Urmiyê de weke Dadwer mijûlî kar bû û piştî heyamekê bû bi berpirsê îdareya Dadwerî a Bokanê. Di sala 1358'an a Rojî û piştî serketina şoreşa gelên Îranê de hate nav refên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û çalakiyên siyasî ên xwe domand.



Kak Selam Ezîzî bi piştî girêdan bi şiyan û jêhatiya xwe, hemû pile û payeyên berpirsatiyê li nav Partiyê de yek li dû hev wekî, endamê heyeta îcrayî a Komîte şaristana Bokanê, Endamê Komîsyonê, berpirsê Komîte şarsitanê, endamê Komîteya Navendî û Endamê Deftera Siyasî bi serkevtin ve derbas kirin.

Kek Selam Ezîzî, mirovekî bişiyan, bibawer û biexlaq û di kiryar de li qada xebatê de mirovekî rasîn bû û bi hemû şiyana xwe ve piştevanî ji maf û edaletê di civakê de dikir.

Di kar û kiryar û helwestgirtinê de, birêveberekî bişiyan, ektîv û mandî nenas bû. Hemû demên xwe bo cî bi cî kirina erkên hizbî ên xwe terxan kiribû. Şoreşvanekî bi tewaw mana, demokratekî rastîn li ser rêbaza Partiya Demokrat, mêrê rojên tengasiyê, hevalê emegnas û rastîn yê rêbaza Dr. Qasimlo bû.

Mînak û berjenga kiryarî û piratîk a wî, mamostayê demokrasiyê, Dr. Qasimlo bû. Pêwendiyên civakî ên xwe li ser bingeha berjewendî û qazanca xelkê dadirêt û rêz ji endamên partiyê digirt. Kadr û pêşmerge dihebandin. Bawerek kûr bi demokrasî û mafê çarenivsa netewa Kurd hebû. Hertim û di her derfet û civînekê de piştevanî ji mafên rewa ên netewa xwe dikir.

Jêhatî, zîrekî, sadeyî, fidakarî, rastbêjî û sidaqet û bawerî bixwebûn, taybetmendiyên berbiçav ên ûehîd Selam Ezîzî bûn.

Bi hebûna wan taybetmendiyan û piştgirêdan bi şiyanên xwe li rêberiya Partiyê û tevgera mafxwazane a gelê Kurd de, wekî rêberekî jêhatî û xuya li siyasetguzariya PDKÎ de cihê wî diyar û berçav e. Yad û navê şehîd Selam Ezîzî, hertim bi nemirî û zîndî dê bimîne û xebat û tekoşîna di pêxema armancên pîroz û rewa yên netewa Kurd de jî bi rêberiya PDK Îranê, piştî wî şehîdî jî, dê rênima û îlhamderê têkoşerên demokrat be.

# Berxwedana bizava xwendekarî



Şehab Xalidî

**Li** 16'ê Sermaweza sala 1332'an de, xwendekaran li hemberî deshilata wî çaxî de serî rakirin û dest bi meşekî nerazîbûnê kirin, lê ew serhildana wan hate tepeserkrin û çend xwendekar jî şehîd ketin. li destpêka şoreşa gelên Îranê de jî xwendekar texa herî karîger li xebata bi dijî deshilata Mihemed Reza şahê Pehlewî bûn, lê piştî wê ku Xomeynî şiya siwarî pêla hestên xelkê sade û sakar ên Îranê be, û deshilatê bidestve bigre, li hember wan armancan de sekinî ku xwendekaran bo gehîştina bi wan cangorîtî kiribûn û nirxek giran dabûn. Jiber ku Xumêynî bona qahîmkirina pêpkên deshilata xwe ya dîktatorî hewcehî bi tepeseriya azadîxwazan hebû.

Yek ji riyên tepeseriya azadîxwazan, pakkirina zanîngehan ji mamosta û xwendekarên hişyar, têgihîştî û azadîxwaz bû. Lewra li jêr navê şoreşa çandî de, bi hezaran mamostayên herî jêhatî û xwendkarên herî zana neçar kirin ku welat bi cih bihêlin û ji tirsê girtin û îşkenceyan de ku her azadîxwazeke rastîn berbirûyê wan siyasetên dijî mirovî dibûn, neçar man ku rû li welatekî din bikin.

Salên piştî wê jî, salên pirr ji bêdadî û zulm û sitem derheq xelkê Îranê bi giştî û texa xwendekar bi taybetî bûn. Xwendekar bi hukmê wê ku bi ronahiya xwe dilê şevên tarî û tejî ji bêdadiyê şeq şeq dikin, û dibne belaya serê dîktatoran, lewra di welatê ku serbazên bê nav û nîşan yên Îmamê zeman û nûnerê xwedê li ser erdê hikumetê dikin, ne tenê çi di warê asta perwerdê, çi jî di warê azadiya çalakiyan ji bo cîgirkirina sîstemek demokratîk û bersivderê jiyana xelkê welat, tu derfet bi wan nehatiye dan, belkû têne girtin û dikevne jêr îşkenceyên herî hovane û li gorî sedsala navîn.

Çalakiya herî eşkere ya wan xwendekaran di 18'ê Pûşpera sala 1378'an de bû ku piştî daxistina rojnameya Selam dest pêkir, ku xwendekaran daxwaza rakirina biryara daxistina vê rojnameyê dikirin ku di encam de meşek berfireh lê çê bû û piştre hêzên rejîmê bi taybetî hêzên cilik şexsî û Hizbullahî ketin nava xwendekarên zanîngeha Tehranê de û bi awayekî herî hovane li xwendekaran xistin, û xwendekarek jî bi navê Îzet Îbrahîmnijad kuştin.

wê meşa berfireh ya xwendekarî di rastî de dengvedanekî zaf li ragehandinên dervey welat de hebû û karî sitûnên rejîmê bilerizîne, û heta Xamineyî bi awayekî riyakarene hate ser şaşeya televîzyonê û vê carê ji bi rijandina rondikên timsahê kete fikra xapandina xelkê de.

Herçend ku vî çaxî derbek giran li tevgera xwendekarî ket û xwendekaran behayê vê meşa xwe bi bê evê ku deskewtek baş û berbiçav bi dest bixin dan, lê dîsan jî ew hereketa wan bû tecrube bo salên piştî vê bûyerê.

Bê şik yek ji sedemên derbexwarina vê meşê ew bû ku tu bernamerêjî ji vê meşê re nehatibû kirin û berevajiyê îdiayên deshilatdarên rejîmê tu hêz yan deshilatek derekî jî dest têde tunebû, lê di gel tevlîbûna xelkê asayî bi vê hereketê re êdî bi tevahî bêserûberî kete nav vê meşa xwendekarî de, lewra kesên ser bi rejîmê jî karîn ku bi tevlîbûna bi vê hereketê re û bi pêkanîna tundûtujiyê rê bo tepeserkirina vê meşê xweş kirin.

Serbarê wan tepeseriya tevgera xwendekarî niha jî wek hêza herî hişyar û serwext kariye gişt tex û qatên welat bo xebata dijî zordariyê li dewra yek kom bike, her wek vê berxwedana ku di sala 88'ê piştî hilbijartinên serkomariyê de rû da, û xwendekaran rolê herî girîng di meşên bi dijî deshilatdariyê de lîstin. Niha jî xwendekarên azadîxwaz ê welatê me bi sedema bi bandorbûna xwe li xebata dijî zulm û zordariyê de, li jêr zexta herî zêde ya hêzên rejîmê de ne û nirxê hewildanên xwe ji guherîna vê sîstema tejî ji bê dadî û zilm û zordariyê didin.



# Serxwebûna başûra Sudanê

Rûken

Di sala 1927'an de bû ku Birîtanyayê dewleta Sudanê ku ji her du beşên bakûr û başûr pêk dihat damezrand. Eva jî serbarê vê bû ku her du beş bi hevre berdewam di nav nakukiyan de bûn. Lê di sala 1953'an de bû ku hilbijartinên parlemanî di vî welatî de birêve çûn û ku ji koma 97 endamên parlementoya Sudanê tenê 9 nûner ên başûra Sudanê bûn.

Piştî vê ku di sala 1956'an de Sudanê serxwebûna xwe wergirt, şer û kêşeyên dinavbera her du aliyan de ne tenê bi dawî nihat belkû roj birojê krtir bû, û hikûmeta nawendî ya Sudanê jî qet amade nebû ku guh bo daxwaziyên xelkê vê herêmê ragire. Lewra ew siyaseta înkarê û destkirina bi




tepeseriya xelkê vê herêmê ji riya leşkerî û komkujiyê bû sebeb ku başûrê Sudanê qet aramiyê bi xwe ve nebîne ku di encamê de 1.5 mîlyon kesî canê xwe ji dest dan , heya sala 2005'an ku ew şer piştî wajokirina peymannameyê hate rawestandin.

Di vê peymannameyê debas ji serbixweyiya başûrê Sudanê jî hatiû kirin û piraniya xelkê Sudanê di meha Janwiyê de dengê xwe dane serxwebûna herêma xwe.

Başûra Sudanê li 9'ê Tîrmehê ya 2011'an de, serxwebûna xwe ragehand û di rê û resma ragehandina serxwebûnê de gellek kesayetiyên siyasî û nûnerên dewletan beşdarî kirin.

Di rastî de ew herêm xwediyê rûberek nêzîka 640.000 kîlometra çar goşe ye, û tê texmînkirin ku nêzîka 200 zimanên cûda lê hene. Herêmên ku qebîleyên mezin ên wek Dînka, Şuluk û Aşolî lê jiyan dikin, û xwediyê stratejiyek girîng in. Gelek caran di navbera qebîleyên Dînka û Şuluk de şerên mezin çêbûne û bûye sedema xwîn bê rijandin. Di van şeran de bi sedan mirov hatine kuştin. Piraniya van şerane ji siyasetê zêdetir li ser zeviyên li ser sînor û keriyên pez bûne.

Ew herêm herweha bi wan welatan re hevsînor e ku akinciyên wan welatan jî Xiristiyan in. Ew welat jî welatên Îtyopî, Uganda,Kinya û Afrîqaya nawendî û Kungo ne.û here yek ji wan wlatan jî di gel hikûmeta Sudanê kêşeyên mêjîn yên sînorî hene . lewra ew welatane li pey lawazkirina hikûmeta Sudanê bûn û serxwebûna başûrê Sudanê gellek bi dilê wan bû.

Serbarê vê ku Sudanê serbixweyiya vê herêmê bi fermî nas kir, lê hêla jî li ser xetên sînorî û i taybetî di warê herêma pirr ji neft, ya bi navê "Ibîy" cudahiya bîr û boçûnan heye. Ji sedî 70 xelkê Sudanê Misilmanên Sunnî meseb in, û ji sedî 5 Mesîhî ne, û ên din peyrewên dînên sunnetî û xwecî ne. Lê di başûra Sudanê de ne bi vî awayî ye, li vir piraniya xelkê peyrewên Mesîhiyetê ne. Nifusa vir li gorî hinek çavkaniyan 6 milyon kes e, û serbarê vê ku ew herêm pirr ji neft e, lê dîsan jî li gorî serjimêriyan nûzîkî %90 ji xelkê vir li jêr hêla hejariyê de dijîn.

Di rastî de bi serxwebûna vê herêmê xelkê başûra Sudanê gihîştne wan hivî û armancên xwe ên ku bi salan bo di pêxema gihîştina bi wan armancan de canê xwe gorî dikirin û bi vî awayî welatek nû kete ser xerîteya cîhanê. Bê şik deshilatdarên vê herêmê êdî niha pêde wê dest bi avedabkirinawelatê xwe di her warekî de biin û wê bo nehêlana vê hejariyê hewlê bidin ku li encama guhnedana deshilata navendî berbirûyê wan bibû.

Bê vê hêviyê ku rojekê Kurdistan jî wek welatek serbixwe bikeve nav xerîteya cîhanê û bibe endanê NY û gelê Kurd jî bigîje wan hêvî û armancan ku bi sala di pêxemê de xebatê dikin û şehîdan didin.

## Rojev

# Mîlîtarîze kirina Kurdistanê û neewle kirina sînoran



Senar Hatemî/Swîs

Li van midehên derbasbûyî de Komara Îslamî a Îranê serbarê domandina siyasetên hovane ên xwe bi nîsbet gelên Îranê û zêdekirina îdaman, girtin, kuştin, îşkence û çavsoriyan, siyaseta emniyetî kirina welat jî bi awayek xurttir piraktîze kiriye û li rastî de Îran kiriye bi zîndan û padiganek leşkirî. Jiber wê ku ji xelkê û hişyariya siyasî a wan ditirse û wan weke gefa herî mezin li ser xwe dizane, lewma neçar maye ku bo parastina desthilata xwe ji dest vê hêza pengorî û pêlên xezeb û kerb û kîna xelkê, penayê bibe ber her şêwazek tepeseriyê, û bi çavê şik û guman ve mêzeyî her kes bike.

Li vê navberê de kurdistana Îranê ji ber gelek fakterên dîrokî ku tim landika şoreş û serhildanan û çepera azadîxwaziyê bûye û rêberên mezin û navdar li xwe de perwerde û pêşkêşî bargeha azadiyê kirine, û hertim xwedî ji xort û nûnerên xwe ên siyasî derketiye; tim wekî tirs û gefek mezin bo ser dîktatorî û desthilata paremayî a Komara Îslamî hatiye hesibandin.

Lewma pêlên şidet, tepeserî û hovêtiyê jî li vê deverê de zêdetir ji hemû deverên din kiriye. Bi taybetî îsal li ser û bendê 22'ê Pûşperê, 22'mîn salvegera terora Dr.Qasimlo de rê û cihên ewlehî yên tund bona pêşîgirtin ji bizava xelkê girtin ber xwe û serbarê gef, çavsorî, şopandin û girtinan, dîsan xelkê emegdar ên Kurdistanê xwedî ji rêberê xwe derketin bi mangirtina giştî a xwe dan selimandin ku qurs û qahîm li pişt pêşengê xebata xwe û rêbaza mamostayê xwe, dr. Qasimlo de ne. Vê hereketa yekgirtî û dujminbezên, zêdetir xew ji çavên Komara Îslamî herimandiye û ew ji neçariyan de dîn û har kiriye.

Bizava xelkê Kurdistanê, hişyariya siyasî a wan, aştî û azadîxwaziya wan û gelek sedemên din bûne sebeb ku kurdistan tim bi çavek emniyetî ve bihê nihêrtin û bi her awayî ku karîbin xelkê Kurdistanê çewsandine û kurdistan jî her paremayî hiştine.

Komara Îslamî bi vê hindê jî nesekinî û bi hincetên cur bi cur sînorên Herêma Kurdistanê topbaran û bi tewahî neewle kiriye.

Bi vê çendê jî jiyan, kar û kesabeta rûniştiyên sersînoran ji wan têk daye û nahêle ku ewlehî û aramiya herêma Kurdistanê de jiyana biewle biqedînin.

Bi awayek din serbarê wê ku mîlîtarîze kirina bajaran û neewle kirina sînoran pêşeyê hertimî yê rejîmê bûye, lê derheq topbarana sînoran eve rastiyeke ku bi armancên siyasî û wergirtina puanan dest dide wiha kiryarekê.

Bi awayek din çavê rejîmê li hember avedanî û asayîşa Herêma Kurdistanê beredayî nade û nikare li hember pêşveçûnên wir bêdeng bimîne çunku bi gef li ser xwe dizane. Lewma armanca topbaranan serbarê zext xistine ser xelkê deverên sersînorî, nîgerankirin û têkdana barê ruhî û derûnî ê wan, bi awayekê jî givaş xistine ser hikûmeta herêma Kurdistanê û dixwaze pêşiya seqamgêrî, asayîş û cihgîrbûna demokrasiyê li wî welatî de bigre. Herweha bi neewle kirina kurdistanê jî pêşiya sermiyandarên biyanî bo Kurdistanê bigre û zirarê bigehîne aboriya wan.

Ji hêla din ve li vê rewş û zirûfa hesas a rejîmê û kêşe û pirsgirêkên hundirî de, rejîm dixwaze bala raya giştî ji mesele û kirîzên navxweyî ên Îranê de berxwar bike û berdewamiyê bide siyasetên xwe. Lewma bi hêcetên cur bi cur û yek ji wan hebûna gurûpên neyasayî ên çekdar û opozîsyonê, dixwaze nîşan bide ku gef li ser wan heye. Bi vê hêcetê jî rê ji bo mîlîtarîzekirin û neewle kirina sînoran xweş dike.

Lê divê bizanibe ku bi wan kiryar û siyasetên cînayetkarane ên xwe ve ku zêdetir tovê nefretê li dilê xelkê de bi nisbet xwe çandiye, nikare bigihîje armancên xwe. Çiqas zext û givaş li ser wan zêdetir bike, zêdetir jî îrade û murala qahîm a wan li hember xwe de dibîne. Dibe bizane ku opozîsyona rastîn, hemû xelkê Îranê (bi pêkhateyên cuda yên mesebî, olî û netewî), bi taybet xelkê emegnas û şoreşvan ên kurdistanê ne ku êdî sebra wan ji siyaset û li hember cinayet û kiryarên rejîmê de lêwrêj bûye û mirin û nemana rejîmê di dil û hizra xwe dimeyzînin.



# Birayên qaçaxçî,
## taneya watedar ji Spahê



Selîm Zencîrî

Gotinên bêşermane û hejîner ên çend rojan berî niha yên Pasdar Mehmûd Ehmedînijad, Serokkomarê rejîma Îranê ku perde li ser hin cinayet û gendeliyan hilda, bû mijara ragihandinên navxweyî û derveyî. Ehmedînijad bas ji hebûna fesada malî, dizî û iskileyên nefermî yên Spaha Pasdaran kir ku bi neyasayî û dûr ji çavdêriya dewletê karê qaçax dikin.

Herweha ragihand ku ''hemû deriyên sînorî yên neyasayî divê bihên daxistin û her kesî bi navekê kunek li cihekê vekiriye û ji xwe re tîne û dibe. Ger ew kala û alav yasayî in, divê ji riya sînorên yasayî ve bihên veguhastin''.

Wî ji bo nîşandana çarçoveya berfireh a hawirdeyên neyasayî tenê îşare bi qazanc û dahata qaçaxa cixarê kir ku 2 hezar mîlyard tûmen e û bi gotina wî hemû qaçaxçiyên pile yek ên dunyayê çavê temahê jê birîne, vêca çi bigihîje bi biraderên me yên qaçaxçî'', lê navhatî tu îşareyek bi qaçaxa Hiroîn, Tiryak, Morfîn, kokayîn, Elkol û .... nekir ku mêjdeme rola spaha pasdaran li qaçax û mafyaya madeyên bêhişker de hatiye eşkere kirin. Bi taybetî ku li vê dawiyê de wîkîlîksê belgeyên girîng derheq qaçaxa Spaha Pasdaran weşandin.

Şidet yan êş û berejanên wê axaftina Ehmedînijad bi qasekê rijd bûn ku li tenga Spaha pasdaran û şexsê Xamineyî girt û her yek ji wan bilez reaksiyona xwe nîşan dan û serbarê mehkûm kirina axaftina serokkomar, gef ji Ehmedînijad xwarin û daxwaza veşartina nepeniyên hevdu kirin. Lewma Ehmedînijad zû kete çepera berevaniya ji xwe û ji gotinên xwe peşîman bû û da zanîn ku axaftina wî hatiye berevaj kirin.

Lê ew axaftina Ehmedînijad li cihê xwe de weke belge û senedek girîng a dexaleta wê hêzê li talan û dizîna sermiyana Îranê de hat hesibandin. Cinayet, dizî û tawanên ku mêj dem e xelk û azadîxwazên Îranê qal û hawara wê dikin.

Ew hêza dijîgelî, stemkar û talançî ku firçika xwe bi Wilayeta Feqîh girtiye, bi xwîn û samana xelkê pêxorê dike û bi standina can û jiyana xelkê û hinartina terorîzmê jî jiyê xwe dirêj kiriye û dike, renge bo midehek kurt bal hin kesên sade û sawa ve li çarçoveyek pîroz û birêz de cih girtibe, lê êdî bal wan kesan jî ew pêgeh ji dest daye û rûçikê wê ê hov, pîs û mirar ji hemû kesê/î re eşkere bûye.

Êdî derketiye ku tenê bo parastina desthilata pawanxwazane a hejmarek melayên tundajo ên şîî di bin navê Wilayeta Feqîh de heyî û neyîna Îranê bi ba dane û ketine talan û dizîn û firkirina xwîna xelkê û terorîzma navnetewî. Êdî eşkere ye ku siya Spaha pasdaran li ser hemû biyavên siyasî, aborî û ewlehiye welat de heye û bi sermiyan xelkê topşeqanê û pareyê wan jî mezaxtî kar û çalakiyên têkderane û terorîstî ên xwe dikin.

Cara yekemîn, serokê meclîsa şeşem, anku Mehdî Kerûbî basa hebûna wan iskileyên neyasayî kir û ji hingê pêve tu car neketibû ber bas, ku vê carê Ehmedînijad ji ber zextên siyasî li ser xwe û hevalên xwe ku bi hêla sor dide zanîn, neçar ma diziya hevalbendên xwe ên duh eşkere bike û weke kartek givaşê bona kêmkirina zextan li ser xwe bikar bîne. Her kesê re eşkere ye ku niha dubendî û nakokî ketiye navbera desthilatdarên Îranê û wekî guran berbûne canê hev. Lewre ye ku car car em dibînin ku îşareyek biçûk bi faylên dizî û qaçaxçîtiya hev dikin, nexa ne li ber qazanc û berjewendiya xelkê û gelên Îranê ye.

Ehmedînijad piropagandayên hilbijartinî ên gera 9 û 10'an bi êrîşkirine ser axazadeyan dest pêkir ku bûne parek ji fesad û gendelkarên aboriya Îranê, her çend ku tu car ew lîsteya xwe dernexist û kes jî neda dadgehê. Lê niha ku zext li ser Ehmedînijad û hevalên wî heye, çima ew basa fesada aborî dike?

Paşan jî roja berî axaftina Ehmedînijad, hejmarek ji nûnerên meclîsa Îranê dozek li dijî hevkarên nêzîk ên Ehmedînijad( Beqayî û Meşayî) li komîsyona esla 90 a meclîsê vekirin ku têde her du tawanbar bi beşdarîkirin li dan u standinên neyasayî û qaçaxa cixarê hatibûn kirin, lewma jî Ehmedînijad jî ew tawanbar kirin.

Bi giştî li wê axaftina Ehmedînijad de çend peyam û tiştên girîng hene:

_Ger heya niha şik û gumanek ji sêkoçkeya Spah, Wilayet û fesadê hebû, serkomarê hilbijartî ê Xamineyî ne ji ber berevanîkirin ji rastî û mafên xelkê, belkî ji ber kêşe û dubendiyan perde li ser beşek ji diziyê veda.

_Weke belge û sened rola Spaha pasdaran li qaçax û mafyayê de erê dike.

_Bi baş û xirab hemû şirîkê van tawankariyan û karwançiyê karwanekê ne.

_Êdî xelkê re eyan dibe ku bi çi diz, cinayetkar û talançiyan re ber bi rû ne.

_Spaha Pasdaran weke hêzek leşkirî – siyasî dest bi ser hemû demar û şademarên aboriya Îranê de girtiye.

_Spah bi mifah standina xirab ji wan iskileyan, ji du riyan ve derbê ji aboriya Îranê dide:
Yekem jinav birina berhemhênerên navxweyî.

Duyem: bêpar kirina xizîneya giştî ji dahat û gumrikê.
_Germkirina bazara binav hilbijartinê û mijûl kirina xelkê bi meseleyên han.



## Balyozê rejîma Îranê li Bexdayê hat birîndarkirin
### barek cihê şik û gumanê ya teqînê di tirombêla xwe de bi cih kiribû

**Tevî derbasbûna çend rojan bi ser bûyera êrîşa bo ser trumbêla balyozê Îranê li Bexdayê ew bûyer hêla jî aliyên cur bi cur ên wê bi tewahî zelal û eşkere nebûne.**

Ew bûyer roja sêşemiyê di demekê de rû da ku li herêma Kesk ya Bexdayê de hêzên ewlekariyê ên Îraqî şik û guman wan dikeve ser trumbêla balyûzê Îranê li Îraqê de.

Dema ku daxwaza sekinandinê ji ajotvanê balyûzê Îranê dikin ew guh nade wan hêzên ewlehiyê, ku di encamê de îrêşê dikne ser trumêla balyûzê Îranê, ku di encam de balyûz û hevalên wî birîndar dibin.

Hêjayî basê ye ku Hesen Danayîfer balyûzê Îranê ji wan dîplomatan e ku pêştir ser bi Hêza Quds ya Sipaha Pasdaran bûye.

## Komara Îslamî 5.8 Milyard Dolar
### hevkariya Sûriyê dike

Li gorî rapora rojnameya "Lizko", "Nanvenda Lêkolînên Stiratêjîka" Tehranê ku yek ji navendên girêdayî bi Xamînêyî ye, di raporek veşartî de ku eşkere bûye, dibêje rejîm dixwaze 5.8 Milyard Dolar pereyê nexdî bide rejîma Sûriyê, ku 1.5 Milyard Dolar ji vî pereyî pêşwext dide û yê mayî jî piştî sê mehan.

Çar meh ji nerazîtiyên xelkê Sûriyê derbas bûye û rejîma Sûriyê tûşî karesatên berfireh ên abûrî bûye. Herweha sermiyadarên biyanî jî li Sûriyê vedikêşin. Di vê rewşê de rejîma Komara Îslamî bo vegerandina rewşa normal a abûriya Sûriyê û parastina rejîma Beşar Esed, dixwaze hevkariyên Milyardî bi rejîma Sûriyê bike.

Her di vê pêvajoya vê pîlanê de rejîma Îranê dixwaze di her rojê de 290 boşqe nefta xaw bi awayek xorayî bide rejîma Sûriyê. Rojnameya han amaje bi vê yekê dike ku mana rejîma Beşar Esed bo Komara Îslamî hewce ye û rejîm hemû hewlên xwe dide ku rejîma Sûriyê bi her awayekê ji hiloşînê rizgar bike.

# Ger bibêjim ne, dê bihêm kuştin

**Rûnahî Mihemedî**

Di van çend hefteyên derbasbûyî de nûçeyên ecîb di warên aloziyên civakî de tên bihîstin.

Lê nûçeya kuştina keçek xwendekar li ber zanîngeha Elame Tebatebayî a bajarê Tehranê piştî nûçeyên destdirêjiyên cînsî ên bikom li virde û wir de yên Îranê, yek ji nûçeyên dilêş ên hefteyên derbasbûyî bû. Di çend mehên derbasbûyî de eva duyemîn bûyer di warê qetlên namûsî li Tehranê bû ku nûçeyên wê eşkere bûn. Yekem kuştina kurek ciwan ji aliyê mêrê jinek ku telaq wergirtibû û bi wî kurî zewicî bû. Duyem kuştina keçek xwendekar bi 40 zerbeyên kêr bi destê kurek ku hez jê dikir. Zêdebûna bûyerên han di heyamên derbasbûyî de nîşan ji adîbûna tawan û aloztirbûna rewşa civakî a Îranê dide.

Cînayeta han Demjimêr 14:30 piştînîvro li ber zanîngeha "Elame Tebatebayî" a Tehranê diqewme. Du keç ji zanîngehê derdikevin, kurek bo aliyê wan êrîş dike û bi 40 kêran keça xwendekar birîndar dike.

Ambolans jî weke hemû caran dereng digihîje û çend kesên ku li wir bûn, neçar dibin ku wê keçê siwarê tirombêlek şexsî bikin û keç berî gihîştina bi nexweşxane, canê xwe ji dest dide. Kur (Kûşa) tê girtin, kurik di malbatek asayî mezin bûye û dibêje ku "4 sale ji keçikê (Mehsa) hez dike, lê keç bi wî bersiva red dide, ez jî ji vê rewşê mandî bûm û min biryar da ku wê keçê bikujim".

Berpirsê zanîngehê jî ku mijara cudakirina keç û kuran di zanîngehê de gellek girîng e, hay ji wê bûyerê nine.

Di vê babetê de qirar nine ku kesek weke tawanbar bihê nasîn, em dixwazin bizanin ku çima di civaka Îranê de jin bi vî awayî tên çewsandin û kesên din qedera jinan diyarî dikin.

Kurek ku mafê xwe dizane ku bi her awayekî li gel keç riftar bike û jiber bihîstina bersivek ku gorî dilxwaza wî nine, çawa dibe bi xwe îcaze dide ku dawî bi jiyana keçê bîne? Di vir de, mijara girîng, malikiyeta mêr li ser leş, hizrîn û pêşeroja jinê ye. Mehsa jiber nepejirandina pêşniyara Kûşa bo zewicînê tê kuştin, ew bûyer berhema geşedana hikûmetê bi buhayên paremayî û sunetî yên civakê ye, herweha berhema piştevaniya desthilatê ji hizrên dijî jinan e.

Hikûmet ne tenê tu car hewl nedaye ku pirsên bi vî awayî çareserî bike, belkî di hemû awayên perwerde û di nav dezgehên ragihandinên xwe ji nêrîna han piştevanî kiriye. Piştî qewmîna van bûyeran jî tenê bi şîweyek tund cezayên weke îdamê birêve dibe.

Rejîm nûnera nêrîna sunetî û paremayî a civaka Îranê li hember jinan e û bi qazanca xwe dizane ku jin ji mafên xwe bêpar bin, û hewl dide ku jin ji mafên berhq ên xwe haydar nebe. Haydarbûna jinan ji mafên xwe bo Komara Îslamî mijarek metirsîdar e. Yasayek diyarîkirî bo pêşîgirtin ji bûyerên dijî jin di Îranê de nehatine dayîn û yasayên dadwerî ên rejîmê, netenê pêşî ji wan bûyeran nagire, belkî bi xwe rêxweşkerê qewmîna wan e.



# Telaq, qonaxa derbasbûna civakê ji sunetê ve bo modernîtê



Amarên cur bi cur di warê telaq di Îranê de nîşan didin ku civaka Îranê di vî warî tûşî guhertinên bingehîn bûye û di çend salên derbasbûyî de amara telaqê bi awayek berbiçav jorde çûye. Li vir de emê amaje bi hin amaran ku ji aliyê nûçegihaniyên hikûmetî ve hatine ragihandin.

Serhejmariya telaqê di sê sala derbasbûyî de %14 zêde bûye û encama her 6 zewacan telaqek heye.(nûçegihaniya Fars)

Amara telaq di 5 salên derbasbûyî de %37 zêde bûye. (nûçegihaniya Mêhr)

Di parêzgeha Qumê, ji her 4 zewacan, zewacek bi telqê bi dawî tê.(berpirsê Bihzîstî ê parêzgeha Qum, Xeber anlain)

Dr. Mêhrdad Derwîşpûr, civaknasê Îranî, akincî li welatê Swêdê, di vî warî de dibêje ku civaka Îranê mijûlî derbasbûna ji qonaxa sunetê bo modernîtê ye. Bi gotina wî çiqas civakek modern be, ferdiyet û takbûn jî geşe û wateyek taybetî digre û telaq nîşanderê vê mijarê ye. Wate kesên e ku buhayên civakî berçav nagirin û li ser vê baweriyê ne ku bi telaqê pirsgirêkên jiyana wan tên çareserkirin.

Eve yek ji taybetmendiyên qonaxa derbasbûna civakek sunetî bo modernîtê ye.

Berpirsê giştî yê îdareya Bihzîstî a Qumê di hevpeyvînek tevî "Xeber onlain" ragihand ku encama %30 ji zewacên wî bajrî, telaq e.

Qum mezintirîn senter û navenda perwerdekirina olê şîe li Îranê ye û weke bajarek tewaw olî û mesebî tê nasîn.

Mêhrdad Derwîşpûr di warê amara telaqê di wî bajarî dibêje ku jordeçûna amara telaqê li Qumê, nîşandera jinavçûna buhayên sunetî di wî bajarî de ye. Rejîm 32 sal e ku bas ji "Nehada Pîroz a Malbatî" dike, lê niha em dibînin ku amara telaqê her ku diçe zêdetir dibe û nehada Pîroz a Malbatî ji hev belav dibe. Ev yeke jî paradoksa dirûşmên hikûmetî tevî rastiyên civaka Îranê nîşan dide û bûye sedema tirsa hikûmetê.

Di vê rewşê de heyamek berî niha, Ehmedînijad bo veşartina amara rastîn a telqê, bi Îdareya kotikê "Sebtê Ehwal" destûr da ku amarên telaqê nehên eşkerekirin.

**Îran di warê cînsî de jî tûşî karesatên kûr bûye**

Berpirsê beşa derûnnasî yê saziya pîzîşkiya yasayî a rejîmê di hevpeyvînek tevî nûçegihaniya Îsna, ragihand ku sedema bingehîn a %50 heya %60 a telaqan li Îranê, pirsgirêk û nexweşiyên cînsî ne.

Dr. Mêhrdad Derwîşpûr di vî warî de dibêje ku Di Îranê de take riya pêwendiyên cînsî, tenê zewac e û berî zewacê, karê han ji aliyê civak û hikûmetê ve nahê pesendkirin.

Wate gellek kes heya zewicînê ji pirsgirêk û nexweşiyên cînsî yên hevdu ku renge hebin, haydar ninin û piştî zewacê tûşî pirsgirêkên zêdetir dibin ku bo wan kesan telq baştirîn rê bo domandina jiyanê ye.

# Saxlemiya civaka Îranê bi hebûna Komara Îslamî ne mumkin e



Ceifer Mubeşirniya

Heya dem derbas dibe, xelkê Îranê dikeve kirîzên civakî û karesantên nû diqewimin. Di qada pirsgirêkên civakî di Îranê de, heyemek e ku di civaka Îranê de diyardeya fesada exlaqî ku xwedî derbasbûyekê ye, pê dihavêje qonaxek din a aloz û dijvar. Îsal bo cara çendemîn nûçeyên destdirêjiyên bi kom "group sex" di mal û parkên Îranê de hatine belavkirin. Pirsa han ne ev e ku girûpek ji ciwanan bi xwasta xwe dest avêtibin karek bi vî awayî.

Belku di rewşa xirab û perîşe ya civaka Îranê de ye ku mirovên bêexlaq bi derfet dizanin û heya niha pir caran bûyerên han qewimîne û hatiye eşkere kirin ku karê han bi zor ji aliyê mêran ve meşiyaye ku di vê navberê de jî goriyên sereke jin in.

Dema ku tevlîhevbûna balansa jiyan û valakirina dergehên mifahsitandinên xirab di pêvajoya rewşa civakî di Îranê de bi taybetî ji aliyê desthilatê ve bi rohnî xuya be û xemsarî û guhnedan bi pirsên civakî bi eşkere werin dîtin, veşartî nine ku mijûlkirina xelkê bi pirsgirêkên wiha re û ew jî ne bi awayekî zanistî, rêya çareseriya wan ji xelkê re pirr zehmet dike û li hember de navendên hikûmetî jêstên xebat li dijî wan diyardeyan digrin.

Ragihandinên rejîmê heya qasekê xelkê li dor pirsên han mijûl dikin wekî ku rejîm hayradî wan pirsan e û di hewla çareseriyê de tu kêm nedaniye, ser ji xelkê aloz kirine û derfeta xwastina mafên mirovîn ên xwe û hewladan bo jiyanek bêtir û ewlehiya civakî ji gel wergirtine. Helbet daxwazên mafêm mirovîn û hewildan bo ewlehî û tenahiya civakî di çepera dijberiyê de ye tevî sîstema desthilatdariya Komara Îslamî.

Bêguman di her civakekê de mirovên bê pirensîp peyda dibin ku divêt li gor urf û edet û yasayeyê konterol werin kirin. Lê di civakekê de ku tevlîhevbûna civakî berhema sîstema desthilatdariyê be, delîve ji mirovên han re berfirehtir e ku diyardeyên neexlaqî û pêvajoya nerênî bi qasekê ku îro di Îrana me de tê dîtin berfirehtir bikin û tim xelk şahîdê bûyerên nû ên nebihîstî bin.

Xêncî vê yekê ku vê diyardeyê jî weke her bizavek din demekî dirêj derbas kiriye, rejêma îro ya Îran xwediyê felsefeyekê taybet e di warê lezgîniyê di belavbûna arîşeya han ya ku îro qirika civaka Îranê diguhişîne.

Eşkere ye ku pirsên han avê di çavkaniya hin arîşeyên jiyanê divexwin. Heke mirov haela çareseriyê û hewişandina wan çavkaniyan bide, divêt ku jiyana xelkên tûşbûyî bi wan kirîzên civakî bi awayekî pirr alî were şirove kirin, heya ku sedemên sereke ên wan diyardeyên xirab di civakê de bihên destnîşankirin. Ne dûr e ji aqil ku facterên weke taybetmendiyên çandî, abûrî, siyasî û helkefta cuxrafiyayî, rola sereke di pêvajoya serhildan û berfirehbûna pirasa han di civakê de dilîzin û pêwerên rastîn ên vê ne. Haydarî û zanebûna tev alî li dor rewşa jiyanê destpêkek e bo hewildan di pêxema çareseriyê de.

Helbet di her çandekê destdirêjiya cinsî bi her awayekê mehkûm e, bi ezmûn derketiye ku heya pabendbûn bi binc û baweran di çanda civakê de mikomtir be, îmkana zêdebûna diyardeyên bêkêr di civakê de kimtir e.



Di vê peyvendiyê de heke bal bi ser piropagendeyên desthilatdarên Îranê de were kişandin, tim eşkere dibe ku di hewlên nehiştin û ji holê rakirina çandên resen di civakên cuda ên Îranê de xurt in û heya qasekê bi mifah wergirtinê ji Îslamê û cihgîrkirina çanda îslamî, serkevtin pêve diyar e. Lê pênaseya çanda îslamê ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê ve jî heya wî cihî ye ku di xizmet parastina sîstema siyasî a rejîmê de be.

Di warê abûrî de jî rastiya 32 salan dîroka desthilatdariya vê rejîmê di warê abûriya welat de û kirîzên abûrî ên ku di encama siyasetên şaş ên rayedarên malbata "welayet a feqîh" de welat girtine, daketina berbiçav a asta abûrî û danûsitandinên eşkere û nepenî tevî desthilatên dîktator ên cîhanê û ... eyankerê rewşa pirr xirab a abûriya Îrana di bin desthilata Komara Îslamî de ne.

Ji aliyek din ve rewşa nebaş ajiyana xelkê di Îranekî xwedî samanên xwezayî û helkevta stratejîka cuxrafiyaya û kêrhatî ji bo geşekirin û pêşdeçûna rewşa jiyana gel, rol di serhildana hemû diyardeyen nebaş , laş firotina jinan weke mînakekî berçav di Îranê de, dibîne.

Di warê siyasî de jî bertengkirina bazneya desthilatê di navbera çend kesyan de û darêtina siyasetên çewt di her warek de ji aliyê wan kesan ve û herweha qutkirina destê xelkê di birêveberiya welat de û bêhîvî û vêzarbûna xelkê li jiyanê, raste rast bandorê dixe ser ji rê derketina xelkê û serhildab û geşekirina hemû cure berçavî û pirsgirêkên civakî yek ji wan destavêtin û zordestiya cinsî ku di wan dawiyane de bûyê gef û metirsî û bal keşandiye ser xelkê.

Di encam de rewşa nebaş a civakî di Îranê de ber û berhema terz û tîtalên desthilatdarî û birêveberiya malbata "welyeta feqîh" e û eşkere ye ku ji siyaset û darêtinên siyasî yên ku heta niha ji vê malbatê hatine dîtin, tu rewş ji vê rewşê çetir nabin.

# 25 Milyon kes di Îranê de tûşî nexweşiyên derûnî bûne

Li gor nûçegihaniya "Ferarû", Dr. Demarî, endamê heyeta zanistî a zanîngeha Pîzîşkî a Tehranê ragihand, pêtir ji %35 ji xelkê Îranê tûşî nexweşiyên cur bi cur ên derûnî bûne û nexweşiyên saykolojî yekemîn nexweşiya metirsîdar bo saxlemiya xelkê Îranê ye. Herweha berpirsê civata pîzîşkî a Îranê got: Nexweşiyên derûnî û cesteyî bi hevre pêwendî hene, û sedema bingehîn a gellek ji nexweşiyên cesteyî, hebûna pirsgirêkên derûnî ye.



Di van çend salên derbasbûyî de amara kuştin, tund û tûjî û tawanên din jorde çûye, lêkolînvanên civaknas di vî warî de li ser vê baweriyê ne ku nexweşiyên saykolojîkî yek ji hegerên bingehîn bo kiryarên han e.

Tûşbûna %30 ji xelkê Îranê bi nexweşiyên derûnî bi wateya rêxweşbûn bo encama tawanên civakî ye.

# Îslamîkirina Hunerê bi çi armancekê?



Sadiq Vehdanî

Huner diyardeyek birewşe mirovî û siroştî ye ku dikare mîrata çandî ya civakek yan weke mîratek cîhanî û navnetewî bihê nasîn. Cureyên hunerê pirr in û her hunerek bandorek taybetî li ser hestên siroştî yên mirovan heye.

Huner jî weke diyardeyên din ên mirovî qonaxên cur bi cur derbas kiriye û di her qonaxekê de hin taybetmendî bi xwe ve girtine. Taybetmendiyên ku li gor guhertinên seqayên civakî pêkhatine û li jêr bandora selîqeyên xelkê di warê "rindnasiyê", taybetmendiyên hunerî jî tên guhertin.

Çavkaniya hunerê rindatî ye û huner diyardeyek rind û balkêş e û hestekê xweş dide mirovan. Helbet di vê pênaseyê de diviya em bizanin ku "rindatî" çî ye. Di vir de tenê amaje bi vê yekê dikin ku rindatî tiştek rêjêyî ye ku renge ji hestkirin bi rindatî ji kesek heya kesek din cuda be.

Di Îranê de jî hunerê qonaxên cur bi cur bi xwe ve dîtine û piştî qonaxa sunetî û li pey modernbûn û akadimîkbûna zanist û diyardeyên mirovî, huner jî tevlî qonaxek nû bû. Helbet pênasekirin huner weke zanistek, mijarek aloz û zehmet e û em dikarin bibêjin ku bi giştî pênaseyek diyarîkirî bo huner tune ye. Jiber vê yekê gellek zanistên din weke "Mêimarî" ku di zanîngehan tên xwendin, tevî hunerê pêweniyên kûr hene.

Hînkirina huner di zanîngehên Îranê berê şoreşa sala 1979'an dest pê kiribû. Piştî şoreşa sala 1979'an û piştî destûra Xumênî bo pêkanîna "Şêwra şoreşa çandî" awayek nû û nerênî bi xwe ve girt û eva yekem qonaxa dijberiya rejîmê li hember hunerê bû. Armanca pêkanîna şêwraya han berfirehkirin û nifûza çanda Îslamî di hemû warên jiyana xelkê û jinavbirin diyardeyên madî û rojavayî hatibû diyarîkirin.

Herweha yek ji armancên wê şêwrê, Îslamîkirina zanîngehan bû, huner jî yek ji mijarên baskirî bo pêvajoya Îslamîkirinê hate baskirin. Şêwra şoreşa çandî a rejîmê bas ji jinavbirina diyardeyên madî û Rojavayî dike. Eva di halekê de ye ku huner bi xwe diyardeyek madî nine û pêwendiya wê tevî seqaya meinevî tişteke eşkere ye û herweha tu pêwendiyek li gel mijarên Rojavayî û Rojhilatî tune ye. Huner li ser bingeha "rindnasiya" xelkê tê şirovekirin û mijarek ser bi xwe ye. Wate renge selîqeya kesekî/ê Rojhilatî li gel kesek Rojavayî yek be û ji yek awa ji hunerê hez bike. Renge hejmara kesên ku ji hunerên herêmî hez dikin zêdetir bin, lê eva hegerek mentiqî nine ku kesek bixwaze bo hunerê sînoran diyarî bike.

Hunerên herêmî di dirêjahiya dîrokê tevî hunerên herêmên din yên cîhanê pêwendî hebûne. Huner weke diyardeyek bêsînor û naskirin û çarçovedan bi esliyeta huner vê diyardeyê bêwate û pûç dike. Di vê rewşê de rejîm heta bi qutkirina huner di çarçoveyek herêmî de hêj qayîl nabe û bas ji Îslamîkirina hunerê jî dike, bi bê vê ku pênase û faktorên diyarîkirî ji hunera Îslamî hebe.

Wate diyar nine ku mebest ji hunera Îslamî çî ye. Huner û Îslam du mijarên cuda ji hevdu ne û Îslam pênase û şiroveyek taybetî ji hunerê nekiriye û rejîm bixwaze li gor şiroveya Îslamî xwendekaran hînî hunerê di zanîngehan de bike. Di vê rewşê de rejîm şiroveyek taybetî bi îdeolojiya hikûmeta xwe heye.

Armanca rejîm, armancek bê bingeh û nerohn e ku tu mentiq û zanistek berheq pê nahê dan.

Bi giştî stratejiya rejîmê ji destpêka desthiladariya xwe li hember hunerê, dijberî tevî hunerên serbixwe û nedewletî û herweha kontrolkirin û guhertina diyardeyên hunerî bi qazanca desthilatê bûye. Esliyeta hunerê tu girîngiyek bo rejîmê nebûye.

Ji aliyek din ve bêparkirina xelkê ji diyardeyên hunerî karek nemirovane ye û mînakek rohn ji dijberî li gel çand û selîqeyên xelkê ye. Wate rejîm biryar dide ku xelk ji çi hunerek hez bikin û eva jî bêhurmetiyek mezin bi selîqeyên xelkê tê hesibandin. Qutkirina hunerê bi wateya qutkirina çandê ye. Em dizanin ku çanda her civakekê yek ji sedemên bingehîn bo pêşkevtina her civakekê ye.

Ji destpêka desthilatdariya dewleta Ehmedînijad mijara Îslamîkirina zanîngehan bi awayekî micidtir kete ber bas û tevî hewlên nerênî ên hikûmetê di warên cur bi cur weke hewldan bo cudakirina keç û kuran di zanîngehan û Îslamîkirina zanistên Însanî, ku bi ser zanîngehên Îranê hate sepandin, huner jî ji vê nêrîn û kiryara rejîmê bêpar nebû û heyameke bas ji îslamîkirina hunerê jî tê kirin.

Bi giştî diyardeyên hunerî bi du armancan tên çêkirin.

1. Bi armanca esliyeta hunerî, wate girîngî bi teknîkên hunerî ku tenê li ser binemaya tamdîtin ji hunerê tên çêkirin. 2. Bi armanca teblîxa hizrekê û mifahwergirtin ji huner bi mebesta armancek civakî, hizrî, siyasî, çandî û ... ku diyarîkirî bin.

Herweha ger em bixwazin ji aliyek din ve mêzeyî vê mijarê bikin, yek ji faktorên şadbûn û kêfxweşbûna her civakekê girîngî û tamdîtin ji hunerê di civakekê de ye. Eva di halekê de ye ku li gor lêkolînên taybetî di vî warî de ku ji aliyê damezirawa "Galup" ve hatibû ragihandin xelkê Îranê tu cihek di nava xelkê şad ên cîhanê de ninin.

Rohne ku rejîm bi bê nasîna esliyeta hunerê, dixwaze ku diyardeya han di xizmeta deshilatê de be û tenê qazanca siyasî ji hunerê bo rejîmê girîng e. Bo mînak gellek ji melayên hikûmetî ên rejîmê dibêjin ku muzîk di ola Îslamê de heram e û nabe bi tu awayek muzîk bihê çêkirin û guhdarîkirin, lê me dît ku di dema şerê Îran û Îraqê, yan di destpêka bi destxistina desthilata Komara Îslamî gellek muzîk bi rîtmên bilez ji aliyê kesên girêdayî bi rejîmê hatin çêkirin.

Diyar e ku mebesta rejîm ji çêkirina wan muzîkan, girîngîdan bi esla huner û muzîkê bo pêşvexistina hunera han nebû, belkî li gel vê yekê ku bas ji herambûna muzîkê dikirin, lê bi xwe ji muzîkê bo tûjkirin û handan û tehrîkkirina hestên xelkê bi qazanca xwe mifah werdigirtin.



# Bêdengî



Mehmûd Badilî

Dema bêdengî min
himbêz dike
cîhanê tevî himbêz
dikim
Min navê kes
min himbêz bike
ji bilî te dilberê
Ez im,
ew xwedanê
di hatina te de
gerdûnan diçirisînim
li dora te
digerînim
Ez im,
ew helbestvanê
di pêşwaziya te de
peyvên zêrîn
sema dikim
dînîtiyê dineqşînim.
Ez im,
ew evîndarê
bi hatina te
azadiyê wêne dikim
li ser eniya stiranê,
li ser
lêvê
bêdengiyê,
Û pêxwas li kolana
direvim
xelkê li xwe dicivînim
Bi pinpinîkan re
dikenim
wan digirim û berdidim
Hezdikim dilberê,
hezdikim
Jibo te:keçê
Bi dînîtî diqîrim.

